

**Komîsyona Teşkîlatê a PDKÎ derheq êrîşa hêzên rejîma Îranê li ser kolberan daxuyaniyek belav kir**

»»»» R:3




*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî www.agirimedia.org Hejmar (300) 20-04-2017 Buha (1000) Tûmen*

## Heyeteke Yekîtiya Kurdên Komara Soviyeta Pêşîn serdana PDKÎ kir



**Heyeteke Yekîtiya Kurdên Komarên Soviyeta Pêşîn serdana Deftera Siyasî a PDKÎ kir, û di vê serdanê de, piştgiriya xwe ji xebata gelê Kurd di Kurdistana Rojhilat nîşan da.**

Roja Yekşemiyê 27`ê Xakelêweyê Heyeteke Yekîtiya Kurdên Komarên Soviyeta Pêşîn serdana PDKÎ kir, û ji aliyê heyeta Deftera Siyasî bi serperestiya Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ ve hate pêşwazîkirin.

Ew heyet ji Tahir Silêman serokê Yekîtiya Civata Azerbaycanê, xwediyê rojnameya Dîplomata Kurd û endamê yekîtiya Civata Kongireya Kurdên Soviyeta Pêşîn, Berzanî Elo serokê Yekîtiya Civata Kurdên Sanpitirzborgê, Mamê Mamoy serokê Komeleya Dostaniya Kurd û Rûsiyê, Nûredîn Elî xan endamê Yekîtiya civata Kurdên Qirqîzistanê, û Rûslan Elî xanî, endamê Yekîtiya Civata Kurdên Qezaqistanê.

Di vê hevdîtinê de, herwisa komeke basên girîng wekî dîroka xebata gelê Kurd bo rizgarî, qurbanî û fedakariya neteweya Kurd bo aştî û pêkvejiyana wekhev, û herwisa xebata niha ya Kurd li dijî terorîzmê xistin ber bas.

Di vê hevdîtinê de, heyeta Kurdên Soviyetê bas ji pirsa Kurd bi giştî û bi taybetî di navçeyê de kir, û tevî pêdagirîkirina li ser yekrêziya Kurd, piştevaniya xwe ji referandoma di Başûra kurdistanê û pêkanîna dewleta Kurd eşkere kir, û hêviya serkevtina zêdetir bo Kurd di xebata bo azadiyê û pêkvejiyanê daxwaz kir.

Her di vê hevdîtinê de, heyeta navbirî tevî piştevaniya ji xebata rewa ya gelê Kurd li Kurdistana Rojhilat li ser yekrêzî û yekîtiya di navbera gelê Kurd de pêdagirî kir.

Di dawiya vê hevdîtinê de, her du alî li ser domandina pêwendiyan û alîkariya çend aliyan pêdagirî kirin.

## Trump: Gelo ragirtina tehrîman, di berjewendiya Amerîkayê de bûne, yan na?




**Trump serkomarê Amerîkayê bi ajansên Îtila'atî ên wî welatî ragehand ku di pirsa lihevkirina navikî a bi Îranê re, pêdeçûnê bikin.**

Li gora rapora nûçegihaniya Ruyterzê, Trump roja Çarşemiyê 30'ê Xakelêweyê ragehand ku ajansên Îtila'atî ên wî welatî dibe bizanin ka gelo ragirtina tehrîmên Îranê di berjewendiya Amerîkayê de bûne yan na.
Lihevkirina naskirî bi Bercamê di meha Tîrmeha sala 2015'an de, di navbera rejîma Îranê û girûpa 5+1 (Amerîka, Berîtanya, Fransa, Rûsiye û Çîn, pênc welatên endam ên Konseya Ewlekariyê a NY digel Almanyayê) hate pêkanîn.
Li ser bingeha vê lihevkirinê di hemberî sînordarkirina çalakiyên navikî ên Îranê de, tehrîmên dasepandî li dijî vî welatî bi sedema çalakiyan, hêdî hêdî tê hilweşandin.
Piraniya Komarîxwazên Amerîkayê bi taybetî Trump ji dijberên vê lihevkirinê ne. Trump ew lihevkirin wekî lihevkirina herî xirap bi nav kir, û di piropagendeya hilbijartinên serkomariyê de gotibû ku ewê wê lihevkirinê bidirîne.
Herçend ku piştre Trump wekî destpêkê, ew qas tund li dijî Bercamê neaxivî, lê qewl û soza pêdeçûnê bi ser Bercamê de da.
Çend demjimêran piştî derkirna biryara Trump, Cîmz Metîs Wezîrê Parastinê yê Amerîkayê, ku di Riyazê de, berhev bû, pêdagirî kir ku Îran sebebkarê hemû kirîzan e di Rojhilata Navîn de.
Navbirî roja Çarşemiyê herwisa got ku, dibe bi em li dijî hewlên Îranê bo têkdana aramiya herêmê bisekinin. Wî zêde kir, dema ku di herêmê de kêşeyek tê pêş, mirov dikare rejîma Îranê li wir de bibîne.
Wezîrê Parastinê yê Amerîkayê ku piştî hevdîtina digel berpirsyarên payebilind ên Erebistanê diaxivî, got: "Dibe em nehêlin ku rejîma Îranê di welatekî din de kêşeyan biafirîne, dibe em nehêlin girûpeke din, wekî Hizbullaha Lubnanê bigrin. Pirsa niha ew e ku em bona gihîştina bi vê armancê, li ser riyeke rast in".

**Rasan û jeopolîtîka Îranê!**

»»»» R:4



**Êrîşa mûşekî ya sînordar û peyameke bê sînor**

»»»» R:5




**Dîroka referandomên Tirkiyê**

»»»» R:7



## Sergotar

# Cîhada Spî

Kerîm Perwîzî


خلخالی بعنوان حاکم شرع به کردستان رفت

۱۲ صفحه چاپ دوم

اطلاعات

38 salan berî niha di 28’ê Gelawêjê de, Xomêynî rêberê rejîma taze bi deshilat gihîştî ku hemû deshilat di destên xwe de qorix kiribû, li dijî neteweya Kurd biryara cîhadê da, û bi hemû hêza xwe ya leşkerî ya “mute’arif”, û “ne mute’arif” ve, êrîşî ser Kurd û Kurdistanê kir, û her tawana ku ji destên wan hat, li dijî Kurdan, û bona serîtewandina Kurdan encam dan.

Deb û resma hemû lat û lût, û kesên zordar e ku, dema diçne cihekî, yan dixwazin dest bi ser navçeyekê de bigrin, berî her kes û girûpekê, êrîşî ser wan kes û girûpan dikin, ku xweragirtir û bihêztir xûya dikin, û di rastî de ew zordar dixwazin ku bi êrîşa li ser wan kes û girûpên herî diyar û bihêz, şiyan û hovîtiya xwe biselimînin, û bi têkşikandina girûp û kesên destnîşankirî, girûp û beşên din çavtirsandî bikin, da ku bi hêsanî teslîmî wan bin.

Rejîma Xomêynî jî, ji yekem girûpî wate Kurdan ve dest pê kir, û biryara cîhadê li dijî wê derkir, da ku Kurdistanê dagîr bike, û Kurdan têk bişkîne, û wê yekê bike ders û îbretek bo neteweyên din, da ku zû teslîm bibin, û serî bo fermanên wan bitewînin. Piştî êrîşa leşkerî û dagîrkirina kurdistanê bi hêza leşkerî û bi pasdar û spaha hov, rejîma Îslamiya Îranê hewl daye ku îradeya xweragiriyê jî di Kurdistanê de bixe qedeman.

Têkşikandina îradeya xweragiryê bi hêza leşkerî nahê kirin, lewra Komara Îslamî piştî qonaxa dagîrkariya leşkerî, hawara xwe biriye ber pîlanên din, û bi awayên curbicur ji riya siyasî û aborî û civakî û kelturî ve, xwastiye ku êrîşên diyar û nadiyar ên xwe vegeşîne, û bigihîje armancên qirêj ên xwe, wate teslîmkirina îradeya xweragiriyê di Kurdistanê de.

Yek ji wan pîlanên ku encam da, û em dikarin wekî cîhada spî bi nav bikin, hirojma siyasî û fikrî ya Komara Îslamî bi rûçik û navên curbicur û bi maskên cuda ve ye, heya ku Kurdistan bi lîstikên siyasî û şanogerî û firt û fêlên Tehran û Qumê ve mijûl bike, û wê ji nasnameya xweragiriyê dûr bixe, û bi awayê siyasî  xwe bixe nava kelha qahîm ya vîna neteweyî ya Kurd, û bi vî rengî di nav de îradeya neteweyî ya wan birizîne, û vê kelhê kavil bike, û li ser serê jî Huseyniyeya Cemaranê kopî bike.

Ew pîlana bi taybetî di serdema şanoya bi nav hilbijartinan de jî zeqtir dibe, û dixwazin ku Kurd bi lîstika “î’itidal”, û reformên Îslamî û “usulgerayî” ve mijûl bikin, û dema ku ew ji xewê hişyar bin bibînin, di nava lîstikeke diayr û xûya ya seranên Ceman û Qumê de, hatine xapandin, û nasnameya siyasî ya Kurd û Kurdistanê, ku kelha berxwedana neteweyî û azadîxwaziyê ye pencoyî (kedî) bikin.

Cîhada spî ya rejîma Îslamî ya Tehranê, dirêjiya fermana cîhada Xomêynî ye, ku bi awayê serbazî Kurdistan dagîr kirin, û bi pîlana siyasî dixwazin ku îradeya xweragiriyê di Kurdistanê de bixin qedeman.

## Heyeteke PDKÎ di semînareke “danişseraya Firansayê” de beşdarî kir

**Heyeteke PDKÎ bi serperestiya Mihemednezîf Qadirî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ di semînareke “danişseraya Firansayê” de beşdarî kir.**



Roja Pêncşemiyê 24`ê Xakelêweyê li ser vexwandina fermî ya “danişseraya Firansayê” bo Rojhilata Nêzîk, Heyeteke PDKÎ bi serperestiya Mihemednezîf Qadirî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ di semînareke vê danişserayê de ku ji bo “Dr. Sîrîl Rusîl” dukturayê erdnîgariyê û lêkolînvan di CNRS de hatibû rêkxistin, beşdarî kir.
Ew semînar taybet bû bi nexşesaziya Kurdistana Îraqê, û lêkoler di çendîn biyavan de, hewl da ku kêşeya sînor û mijarên pêwendîdar bi xwesteka piraniya akinciyan li Îraq û Kurdistanê zelal bike.
Lêkoler basê vê kir ku Kurdên Îraqê hêvîxwaz in ku çavkaniya enirjiya kangehên xwezayî bi kar bînin, bo avakirina bingeheke bihêz bo diyarîkirina mafê qedera xwe. Di rastî de navbirî rûyeke nû ji Başûra Kurdistanê de vê dema hestiyar de nîşan da. Di rex semînarê de, heyeta PDKÎ hevdîtinek digel nûner û hizb û aliyên siyasî ên din ku beşdar bûn di semînarê de pêk anî, û spasiya “danişseraya Firansewî” li Hewlêrê û birêvebirê semînarê kir.

## Bavê pêşmergeyekî PDKÎ koça dawiyê kir

**Kak Ebas Mîrî bavê pêşmergeyekî PDKÎ koça dawiyê kir.**



Li gora nûçeya ku gihaye malpera Kurdistanmedia, roja Înê 25`ê Xakelêweyê kak Ebas Mîrî xelkê gundê Tengîser û bavê pêşmergeyê PDKÎ Refîq Mîrî di bûyereke hatûçûnê de jiyana xwe ji dest da.

Navbirî kesekî xweşnav, û cihê baweriya xelkê navçeyê bû, û hertim şanazî bi vê dikir, ku kurê wî di refên pêşmergeyên PDKÎ de xebatê dike.

Navbirî di dema karê teşkîlatî de, çendîn carî ji aliyê Îtila`ata rejîma Îranê ve hatiye girtin, û bi awayên hovane hatiye îşkencekirin, û bo heyama çar salan jî, hatiye zindanîkirin.

Termê kak Ebas di nava girseya xelkê navçeyê de bi axê hate spartin.

PDKÎ sersaxiyê dibêje malbat, xizm û kesûkarê navbirî, û xwe şirîkê xema wan dizane.

## Komîsyona Teşkîlatê a PDKÎ derheq êrîşa hêzên rejîma Îranê li ser kolberan daxuyaniyek belav kir




**Komîsyona Teşkîlatê a PDKÎ di daxuyaniyekê de daxwaz ji tewahiya çalakan, û rêkxirawên medenî kir ku siyaseta êrîşkirina li ser kolberan û xelkê kasibkar ên navçeyên sînorî mehkûm bikin, û siyaseta serkutkarane ya vê rejîmê eşkere bikin.**

Deqa daxuyaniyê:

Daxuyaniya Komîsyona Teşkîlat a PDKÎ derheq êrîşa li ser kolberên Kurd di navçeyên sînorî de.

Bo bîr û raya giştî!

Her wekî hûn agehdar in, di doma siyaseta serkutkirinê ya hêzên rejîma Komara Îslamî a Îranê de, êvariya roja Şemiyê 26`ê Xakelêweyê, hejmarek ji kolberên Kurd li sînorê Serdeştê ketin boseya hêzên Întizamî ên rejîma Îranê de, û di encamê de çend kolberên Kurd hatin kuştin û birîndar bûn.

Ew êrîşa ne mirovane ya hêzên serkutkar ên rejîmê, herçend yekem car û dawî car nine, ku berbirûyê xelkê kasibkar û hejar ên navçeyên sînorî ên Rojhilata Kurdistanê dibe, û mafê jiyanê ji wan tê zewtkirin, di rastî de doma serkuta sîstematîk a gelê Kurd ê bêpar û maf jê xwarî ê Kurd e, bi hemû tex û qatên xwe ve.

Berdewamiya vê siyaseta ne mirovane û dijîgelî di demekê de ye, ku rejîma Komara Îslamî bi dirêjahiya temenê biyome xwe, nan û azadî zewt kiriye, û niha jî mijûlî çewtekariyan û birêvebirina şanoya bi nav hilbijartinan e di Îranê de. Şik û guman di vê yekê de nine, ku hemû takek azadîxwaz û tewahiya netewe-ya Kurd li Kurdistana Îranê, êdî nabe di hemberî vê bêmafiyê û bêparbûna ji jiyan, û nan ûazadiyê, û kerameta mirovî ya xwe, bêdengiyê hilbjêrin. Erk û wezîfeya şoreşgerî û azadîxwazane ya her takek Kurd e ku di hemberî siyaseta dijminkarane û mirovkujane, ya Komara Îslamî de dengê xwe bilind bikin, û bi her şêweyekê ku ji dest wan tê, berbirûyê vê rejîmê bin.

Siyaseta qirêj û ne mirovî ya jê standina mafê jiyanê di her awayeî de be, meh-kûm e, û li dijî mafên herî destpêkî ên mirovan e. Di vir de, em daxwazê ji kom û komeleyên mirovdost û rêkxirawên berevankar ê mafên mirovan dikin ku vê siyaseta rejîmê pûç û bê bandor bikin.

Çavnihêriya me jî ji tewahiya çalakan, û rêkxirawên medenî ew e ku siyasta êrîşa li dijî kolberan û xelkê kasibkar ên navçeyên sînor mehkûm bikin, û siyas-eta serkutkarane ya vê rejîmê pûç bikin.

Em daxwazkar in ku tewahiya çalakan, û têkoşeran û hemû takek civaka Kurd-istanê, bi hestkirina bi berpirsyariyê û erka nîştimanî û mafxwazane a xwe, di hemberî rejîmekê de, ku rojane nan û azadiyên wan zewt dike, helwestê bigrin, û nerazîbûna xwe nîşan bidin, û yekrêz û yekgirtî, hewla desteberkirina mafê azadî û jiyanê û parastina kerameta mirovî a xwe bidin, û zêdetir ji hemû de-mekê refên xebatê qahîmtir bikin.

**PDKÎ**
**Komîsyona Teşkîlat**

**27.01.1396**

## Pêşmergeyekî mêjîn ê PDKÎ koça dawiyê kir



**Mam Ehmed Şerîfî pêşmergê mêjîn ê PDKÎ bi sedema nexweşiyê koça dawiyê kir, û tevlî karwanê şehîdan bû.**

Roja Duşemiyê 28`ê Xakelêweyê Mam Ehmed Şerîfî naskirî bi Rehman Qelxanî, xelkê bajarê Nexedê, ku pêşmergeyekî mêjîn ê PDKÎ bû, bi sedema nexweşiyê di navenda 3 ya PDKÎ de koça dawiyê kir.

Mam Ehmed Şerîfî di sala 1317`an de, ji dayîk dibe, lê bi sedema hejarî û destengiyê nikare here xwendingehê, lewra dest bi kar û kasibiyê dike.

Birayekî Mam Ehmed Şerîfî bi navê Se`îd Şerîfî bi destê rejîma cinayetkar a Îranê şehîd bûye.

Malbata navbirî malbateke demokratperwer û welatparêz bûn, û navbirî di destpêka şoreşê de, tevlî refên pêşergeyên PDKÎ dibe, û heya dawî henaseya xwe wefadar dibe bi rê û şopa şehîdan.

Navbirî di temenê pêşmergatiya xwe de, di binkeya komîteya şaristana Nexedê, binkeya Radyo Dengê Kurdistana Îranê, û binkeya Zindana Navendî ya PDKÎ li Qendîlê xizmet kir.

Mam Ehmed Şerîfî kesekî xweşnav û rûxweş û cihê baweriya kadr û pêşmerge û malbatên PDKÎ bû, û termê navbirî di nava girseya xelkê navenda 3 de bi axê hate spartin. PDKÎ sersaxiyê dibêje malbat, xizm û kes û karên navbirî, û xwe şirîkê xema wan dizane.

# Rasan û jeopolîtîka Îranê!



Cemîl Kolahî

Bi dirêjahiya dîrokê, ew welatê ku îro rojê bi navê Îran, em nas dikin, di warê jeopolîtîkî ve xwediyê girîngiyeke taybet bûye. Dagîrkirina împeratoriya Sasanî ji aliyê hêza Ereban ve, girîngiyeke taybetî bona serxistina Îslamê û bicîhanîkirinê hebûye, û bi bê têkşikandina vê împeratoriya Îslamî nedikarî, bi vî awayî bo her ciyekî belav bibe, û ajar bide. Dema ku em zêde nêzîk dibin, Împeratoriya Osmanî heye, ku gefa dagîrkirina Ewropayê dike, û metirsiyeke mezin e li ser Ewropayê! Di vir de welatên Ewropayî û bi taybetî Berîtanya, Spaha Îranê bihêz û pirrçek dike, û li dijî Osmanî bi kar tîne, û parsenga hêz radigre.

Ewropa di vir de, ji dijberiya mezhebî mifahê destine. Wate Sefewiya Şî`e meseb li dijî Osmaniya Sunî meseb mifah jê tê standin. Di serdema şerê sar de jî, Îran yek ji welatên herî girîng ên pêkhînerê kembera ewlehiyê bo pêşîgirtina ji belavbûna komonîzmê bû ku li dijî Yekîtiya Soviyetê pêk hatibû!.

Piştî şoreşa 1979`an a Îranê û hatina ser kar a rejîma Îslamiya Îranê, Îran hêdî hêdî girîngiyeke taybetî ya jeopolîtîkî bi dest tîne!. Ew girîngiya jî hebûna Îsraîlê di navçeyê de ye. Girîngiya Îranê bo Îsraîlê heya radeyekê ye ku li şerê Îran û Îraqê de, bo ragirtina parsenga hêzê, Îsraîl yarmetiya Îranê dide û çek û cebilxaneyan bo dişîne! Îran xwediyê du taybetmendiyên sereke ye ku ji bo Îsraîlê girîng e, yekem eva ku nasyonalîzma zal bi ser Îranê de, nasyonalîzmeke berçavteng a dijî Ereb e, û ya duyem jî ew e ku mezheba fermî ya Îranê Şî`e ye, û mezheba piraniya herî zaf ya akinciyên Îranê jî Şî`e ye!. Hekî em çavekî bi ser pêkhateya nifûsa welatên navçeya Rojhilata Navîn û bi taybetî derdora Îsraîlê de bigerînin, em dibînin ku Ereb û Sunî meseb in!. welatên Îslamî û bi taybetî welatên erebî bi sedema kêşeya Felestînê, û şerên sedsala pêşîn di navbera Îsraîl û Ereban di gel Îsraîlê kêşe hene, û bîr û raya giştî ya Misilmanan, li dijî Îsraîlê ye!. Her lewra di vê navçeyê de, zexteke zêde li ser Îsraîlê heye! Bona derbazbûna ji ji vê zext û givaşê Îsraîlê hewcehî bi cihekî din heye, ku vê zextê li ser rake! Di Rojhilata Navîn de, çi welatekî din, ji Îranê baştir nine, jiber ku hem di warê nasyonalîstî de, û hem jî di warê mezhebî de, li dijî welatên Ereb e!.

Du cîranên Îranê wate Taliban û rejîma Sedam Husên ji aliyê Amerîka û hevalbendan ve hatin rûxandin. Ew kar bû sedema bihêztirbûna pêgeha Îranê!. Jiber ku li gora amaran zêdetir ji %60 a rûniştiyên Îraqê, Şî`e ne, û beşek ji rûniştiyên Efxanistanê jî Şî`e ne! Cuda ji vê jî, rûxana rejîma Sedam bûye sedema hêsantirbûna pêwendiyan, û şandina alîkariyên rejîma Îranê bo Sûriyê û Lubnanê ji riya Îraqê ve!. Lewra rûxandina du rejîmên rikeberê Îranê, nikare bi bê bername bûbe! Piştî rûxandina van du rejîman hêdî hêdî basek li jêr navê çêbûna kembera Şî`e pêk hat! ku ew kember ji Îran, Îraq, Sûriye û Lubnanê pêk tê!. Ku Îran rêbertiya wê dike! Wate pirojeya Rojhilata Navîn a nû ku li serdema Corc Bûş de bas jê dihate kirin, mijûl e ku pêk tê, ku ew jî li ser bingeha dabeşbûna mesebî ye!. Rewş ber bi cihekî ve diçe, ku hevsengiyek di navbera welatên Sunî û kembera Şî`e de pêk tê.

Di vir de hewce ye ku ew yek bihê zelalkirin, ku Îsraîl bi du sedema dijberiya pirojeya navikî ya Îranê dike, yekem têkneçûna hevsengiya hêz di navbera eniya Sunî û Şî`e,û ya duyem jî, di bernameya Îsraîlê de ye ku îznê nede tu welatekî, ku ji Îsraîlê bihêztir be. Her lewra jî, em dibînin ku Îsraîl êrîşê dike ser navenda navikî ya Sedam Husên û wê kavil dike.

Berî Buhara erebî jî, navendeke nêzîk Dîmeşqê, ku gumana wê li ser bû ku navendeke navikî be, bombebran kir!. Lewra dijberiya Îsraîlê ne tenê bi wateya rûxandina rejîma Îranê belkû bi wateya ragirtina hevsengiya hêz e! jiber ku rûxandina rejîmê di berjewendiya Îsraîlê de nine! Niha rewşek pêk hatiye ku bas ji hevpeymaniya Îsraîl û Ereban dike ku li dijî kembera Şî`e ne. hevpeymaniyek ku ne tenê zext û givaşê li ser Îsraîlê vêde dibe, belkû rola hêzeke navçeyî û parêzerane dide Îsraîlê. Niha hemû ew zext û givaşên ku li ser Îsraîlê bûn, bo ser Îranê têne kanalîzekirin, rewşek ku bi tewahî di berjewendiya Îsraîlê de ye, û tu demekjê bi qasî niha ewlehiya Îsraîlê çi di warê siyasî û aborî, û çi jî di warê leşkerî de nehatiye parastin!



**Di vir de pirs ew e ku Rasana Rojhilat di kuderê ya vê hevkêşeyê de ye! Rejîma Îranê û beşek ji opozisyona vê rejîmê her di destpêka Rasanê de, bi destçêkiriyê biyaniyan û girêdayî bi hêzên din bi nav kiriye.**

Ew piropagendeya tenê bo îzolekirin û serkuta Rasanê ye, hekî ne bo aliyê rastiyê de naçe! Jiber ku di rastî de, Rasan hekî bihê bihêzkirin, Îran herwekî ku hate gotin, yek ji fakterên girîng e, bona parastina ewlehiya Îsraîlê, wê lawaz dibe!. Bona vedîtina dost û hevpeymanan bo Rasanê, dibe ku em vê rastiyê berçav bigrin, ku Îran li gora vê îdeolojiya ku heye, û diruşma şandina şoreşê, destêwerdanê di nava welatên derdorê de dike, lewra dijberên zaf hene, û dibe li ser şêwaza pêwendiyên Îran û welatên din lêkolîn bihê kirin.!

Niha ku opozisyon û beşek ji bi nav opozisyona rejîmê bi awayekî eşkere li dijî Rasanê yek girtine, û ji edebiyatekê mifahê werdigrin, PDKÎ dibe ku hêla xebata xwe ji vê opozisyonê cuda bike, û tenê giringiyê bide gotara Kurdî, û ji tu tohmet û boxtanekê netirse, û pêngavên wê sist nebin!

Gotarek ku bersivderê asta hişyariya civaka îrorojê ya Rojhilata Kurdistanê be! Civaka Rojhilata Kurdistanê di newroza îsal de, asta bilind ya xwe nîşan da, û dibe PDKÎ bi hawara vê asta bilind ve here, û gotara neteweyî ya xwe toxtir bike!.

Bona derbazbûna ji benda girîngiya jeopolîtîk a Îranê, dibe Kurdên Rojhilat bibin hêzeke bibandor!. Dema ku bû hêza bibandor, bi wateya vê ye ku dibe metirsiyek li ser berjewendiya gelek welat û aliyan !. tenê di vê demê de ye ku wê guh bidin daxwaziyên Kurdên bindest di Îranê de! Eva tê vê wateyê ku dibe sînorên Rasanê berfirehtir bikin, û rûbereke mezintir bigre xwe! Bo vê armancê dibe hewl bihê dayîn, gellek aliyên Kurd ên xwedîhêz bi kar bînin.

Jiber ku hekî Rasan bihê bihêzkirin, dengvedaneke zêde ya cîhanî ji xebata parçeyên din ên Kurdistanê zêdetir dibe, eva girêdayî ye bi vê ku Kurdistana Rojhilat di nava sînorên Îrana niha de, ku her wek hate baskirin, xwediyê biyaveke jeopolîtîk a şaz be di navçeyê de!

Herwek ku sala derbazbûyî me dît, ku ew şer û pevçûnên di navbera pêşmergeyan û Spaha Pasdaran di çend navçeyên Kurdistanê de dengvedaneke cîhanî hebû, û nûçegihaniyên girîng ên cîhanê bas jê kirin, Îran ku di heyama temenê xwe de, baykûta belavkirina nûçeyan xistibû ser çalakiya pêşmergeyan, bi awayekî berfireh ew bêdengî şikand, û dest kir bi gefxwarinan! Eva jî vedigere ser vê ku berjewendiya welatan dikeve metirsiyê de! Ku ew yek xaleke erênî ye! Dema ku ew yek rû da, wê welat bikevin hizra çareserkirina kêşeyê de!.

Êdî ji vir ve Rojhilat dikeve nava havkêşeyên siyasî ên Îran û navçeyê û heya cîhanê de jî!. Wate PDKÎ wekî rêkxerê Rasanê, dibe jeopolîtîka Îranê ku yek ji astengiyên ser riya Rasanê ye, bike derfet, wate biderfetkirina gefan! Ew jî bi pêdagiriya li ser çalakiya zêdetir, û vegeşandina Rasanê ser digre!.

# Êrîşa mûşekî ya sînordar û peyameke bê sînor



Elborz Ro'înten

Piştî vê ku êrîşa kîmiyayî ya balafirên Beşar Esed bûye sedem ku pitir ji 100 kes li bajarokê "Xan Şîxon" a ser bi parêzgeha Êdlibê canê xwe ji dest bidin û bi sedan kesî jî birîndar bikevin, cîhan careke din şahîdê êrîşeke bi vî rengê bû ku ji aliyê rejîmeke dîktator ve, xelkê welat bibe armanca bombeya çekên qedexekirî ên kîmiyayî.

Êrîşa Xan Şîxonê dengvedanên berfireh di cîhanê de bi dû xwe re anîn, û tenanet Civata Ewlekariyê ya ser bi "NY" civînek awarte di vê derheqê de lidar xist. Herçend Beşar Esed ev êrîşa kîmiyayî ji aliyê artêşa xwe ve ret kir, lê civaka cîhanî û bitaybet Rojavayî, berevajî Beşar Bsed bi tawanbarê sereke dan zanîn, û tenanet rejîma Îslamî ya Îranê jî, bi tawana piştevaniya ji Beşar Esed rexne kirin. Piştî vê êrîş Amerîkayê him di "NY" de û him jî ji ziman Donald Trump ve, êrîşa han bi tundî pirotesto kir, û bi kiryar jî 59 mûşekên "Tomahawk" ji balafirxaneya "El-Şe'îrat" xistin ku, bona êrîşa kîmiyayî mifah jê hatibû wergirtin.

Ew êrîşa mûşekî di demekî de hate encamdan ku, serkomarê welatê Çînê li Filorîdayê mêhwanê Donald Trump bû, û eva jî bi xwe watedar bû. Herweha piştî êrîşa han cîhanê li Rûsiyê dinêrî ku yeke din ji welatên xwedî hêz ên cîhanê ye,jiber ku êrîşa ser balafirxaneya El-Şe'îratê, bersivek bû bo Rûsiyê jî ku piştevaniyê dide Sûriyê, bitaybetî ku bas ji vê dihate kirin ku pêrsonêlên Rûsiyê jî di balafirxaneya El-Şe'îratê de hene. Her di despêkê de, serkevtina Donald Trump û eşkerebûna nîgeranî û kêfxweşiya welatên herêma Rojhilata Navîn di vê derheqê de, ev yek selimand ku, cîhan vê bînerê guherîna siyasetên welateke xwedî hêz yê weka Amerîkayê di herêmê de. Jiber ku siyasetên 8 salî ên Barak Obama bûne sedem ku destên rejîma Îslamî ya Îranê bona destêverdanên di welatên herêmê de zêdetir vekirî be, bi awayekî ku Komara Îslamî ji rêya wan destêverdanan ve, poyenên hewce di dema danûstanan de, li welatên Rojavayî bidest dixistin. Lewra hemû cîhan li benda êrîşeke weha ji aliyê Amerîkayê ve bû, û ev êrîşa mûşekî ya sînordar çendîn peyaman ji xwe digirtin ku tenê taybet bi Sûriye û sînorên Sûriye nine, belkî gellek welatên din ji xwe digire. Lewra herçiqas şiroveya hatineserkar a Donald Trump û siyasetên wî di herêmê de girîng bû, şiroveya peyama di encama êrîşê de jî girîngiya xwe heye.

Yekemîn peyam bo Beşar Esed bû ku sala 2003 û êrîşa leşkirî ya Amerîkayê bo ser Îraqê anî bîra Beşar Esed, jiber ku wî çaxî jî bi hinceta hebûna çekên kîmiyayî êrîş bir ser Îraq û dîktatoriya Sedam Husên û herifand. Herweha selimand ku dewleta Donald Trump bi kiryar siyasetên nû birêve dibe, û hekî hewce be wê êrîşên mûşekî encam bide, da bi wî rengî sînoran bo kiryarên rejîma Beşar Esed diyarî bike.




Peyama Duyemîn bo rejîma Îslamî ya Îranê bû, jiber ku xincî otorîteya rejîma Îslamî ya Îranê li ser Esed û Sûriyê, otorîteya Îranê li ser Hêza Esman ya Beşar Esed û bikaranîna balafirvanên Îranî di êrîşên esmanî ên di Sûriyê de jî hebû, û eva jî bo zor kes û aliyan ne zelal e. Lewra beşek berçav ji berdewamiya şer û mana Beşar Esed, çêkirina alozî û nakokiyên di navbera Rûsiye û Turkiyê û herweha Sûriye û Turkiyê de ji rêya hêza esmanî ya Sûriyê ve bû, eva jî bûye sedem ku rejîma Îranê bibe ekterê herî sereke di şerê Sûriyê de, û pîlanên vê rejîmê bi başî bêne cîbicîkirin. Lê êrîşa mûşekî ya Amerîkayê nîşan da ku êdî ew rewş ber bi bidawîhatinê ve diçe, jiber ku Amerîkaya di serdemê Trump de, tenê li bûyeran nanêre, belkî bertek û dijkiryarên xwe wê hebin, bitaybetî êrîşa bo ser balafir û balafirxaneyan gerek xwediyê vê peyamê be. Peyama Sêyemîn bo Rûsiyê bû, jiber ku Rûsiye jî bi pîlanên rejîma Îranê ve ber bi qopiya Sûriyê ve hatiye rakêşan. Ev êrîşa han bi bê hemahengiya digel Rûsiyê, tenê ji rêya haydarkirina di demên dawiyê de, peyameke zelal bû bo Rûsiyê ku gerek destan ji piştevaniya Beşar Esed berde, û ji hevkêşeyên rejîma Îranê derkeve, û hekî karek weha neke wê digel bertekên tund ên Amerîkayê berbirû be. Vê êrîşê herweha selimand ku rast e ku Rûsiye welatek bi bandor e, lê nikare weke Amerîkayê xwedî hêzekî hertimî be, û tenanet dibe ku bê piştguh xistin jî, renge eva jî bibe sedem ku Rûsiye pêdeçûnekê bi siyasetên xwe de bike, û ji vê hevkêşeyê ku tenê rejîma Îranê qazancê jê dike û berdewam mirovahiyê azar dide, derkeve.

Hevdem nabe piştevanên vê êrîşê, ên weke Erebistan û Turkiye û Îsra'îl bêne jibîrkirin ku, hêla hevkêşetiya xwe digel Amerîkayê pirrengtir ji berê kirin, û bi piştevaniya fermî ya xwe, peyama bandora eniya xwe di pêşerojê de gihandin guhê hemû aliyekî û li serweyî hemûyan, rejîma Îslamî ya Îranê.

Bêguman şer û aloziyan rewşa Rojhilata Navîn gellek aloz kiriye bo mirovahiyê, lewra alîgiriya ji şer ne baş e, lê rastbûna siyaseta herêmê û destêwerdanên Îranê ku sedema sereke ya wan şer û aloziya ne, hekî ji rêya zext û givaşa rasterast û tenanet êrîşên wisa nebe, eva kes nikare sînorekî bo hovîtiya wan dîktatoran diyarî bike, lewra ez êrîşên weha bona rêgiriya zêdetir ji xwînrêjandina zêdetir û wêrankariyên berfirehtir, bi baş û hewce dizanim.

# Dayîka şehîdekî Hizba Demokrat koça dawiyê kir

**Dayîka şehîdekî Hizba Demokrat li bajarê Selmasê koça dawiyê kir.**

Li gorî nûçeya gehiştî malpera "Kurdistanmedia"yê, roja Sêşemî berwarê 4'ê Nîsana 2017'an a Zayînî (15'ê Xakelêweya 1396'an a Rojî) "Delal Tengsar" dayîka şehîd "Keşfedîn Radî" û xelkê gundê "Zola Bihîk" a ser bi bajarê Selmasê koça dawiyê kir.

Di nava aporaya xelkê deverê de termê "Delal Tengsar" li goristana "Zola Bihîk" bi axa pîroz a nîştiman hate spartin.

Şehîd Keşfedîn pêşmergeyekî leheng û xweşteviyê xelkê bû ku roja 25'ê Banemera sala 1373'an a Rojî (1994) di şerekî de li dijî hêzên ser bi rejîma Îslamî ya Îranê, li gundê "Xanege" ya ser bi devera Tirgewer a Urmiyê, tevlî karwanê şehîdan bû.

Mixabin hêj ne diyar e ka termê şehîd Keşfedîn li kuderî hatiye veşartin.

Hizba Demokrata Kurdistana Îranê di vê derheqê de sersaxiyê dibêje malbat û kesûkarên Delal Tengsar û xwe di xem û kovana jidestçûna wê de bi pişikdar dizane.



## Pîrozkirina newrozê, bêdengiya rayedarên rejîmê şikand

Piştî vê ku rêûresmên newrozî bidawî hatin, û rayedarên rejîmê bi tu awayî nekarîn pêşiya wan rêûresman bigrin, niha bêdengiya xwe şikandine û di vê derheqê de bi eşkere rexneyên xwe digrin.

Berpirsê navenda “Emr bi Me`irûf û nehy ez monker” (gazîkirina bo karê baş, û pêşgirtina ji karê ne baş), tevî rexnekirina rêûresmên newrozî di Kurdistanê de, ragehandiye ku birêvebirina van rêûresman îxanet bûye bi çanda xelkê Kurdistanê, û bûye sedema bêserûberiyê, û ji berpirsyaran daxwaz kir ku dibe li dijî van şêwe rêûresman bisekinin.

Li gora rapora “ISNA”yê, Mehmûdullah Muradî, Berpirsê navenda “Emr bi Meirûf û nehy ez monker” ragehandiye, ku me azadiya rasteqîne bo gihîştina mirovan bi armancên mezin bi dest anî.

Wî derheq kêfxweşî û şahiya xelkê got, em li dijî kêfxweşiya xelkê nînin, lê ew kêfxweşî û şahî dibe li ser bingeha Îslamê be. Lê Hinek kes li pey kêfxweşkirina bi gotina wî, dilê “zidê Inqilab”an in.

Wî got wan kes û aliyan, (ku mebesta wî hêz û aliyên siyasî ên Kurdistanê bû) dîrokeke reş di dilê xelkê de hene, û nemane, lê hindek berpirsa carek din wan sax dikin.

Fermandê biryargeha (qerargaha) Şehramfer a parêzgeha Kurdistanê, bi navê Recebî jî di vş derheqê de gotiye: “Xelkê Îranê heq hene ku di dema newrozê de kêfxweş bin, û xelkê Kurdistanê jî bi sedema taybetmendiyên xwe dikarin zêdetir kêfxweşê bin, lê şahî û kêfxweşiya wan dibe çarçoveyek hebe, û me nedîtiye di doma van salan de, xelkê Kurdistanê van çarçoveyan derbaz bikin û pêkhateşikêniyê bikin, û ew naxwazin ku têgihîştineke siyasî bidin newrozê”.



Hêjayî basê ye ku PDKÎ yek ji wan partiyên Rojhilata Kurdistanê bû ku daxwaz ji xelkê Kurdistanê kir, ku bi coşeke mezin ve, newroza xwe pîroz bikin, û xelkê Rojhilata Kurdistanê bi awayên cur bicur rêûresmên xwe ên newrozê pîroz kirin , û li hinek herêman de jî, bi hildana alaya Kurdistanê, û bikaranîna axabaniyan (camaneyan), peyama yekdengî û yekbûn û hewldan bo gihîştina bi azadiyê dane deshilata kevneperest ya rejîma Îranê. Her bi sedema acizbûn û tirsa rejîmê ji vê şêweya pîrozkirina newrozê bû ku bi dehan kesî ji aliyê hêzên ewlehiyê ve hatin girtin û gellek ji wan niha jî di girtîgehê de ne.

Lê ew daxuyaniyên berpirsyarên rejîmê nîşan dide, ku van hemû zext û gefxwarin û serkutê, ji aliyê hêzên wan ve, nekariye bandoreke bi dilê wan li ser xelkê Rojhilata Kurdistanê bike, û wan ji birêvebirina rêûresmên newrozî poşman bike.

## Encama referandoma Tirkiyê bi dilê dijber û alîgirên reformê nebû

Du partiyên dijber ên sereke ên Tirkiyê ragehandin ku di referandoma roja yekşemiyê de saxtekarî hatine kirin, û me encama wê qebûl nine.

Roja Yekşemiyê, Li nav welatê Tirkiyê û Bakurê Kurdistanê 55 milyon û 319 hezar û 222 dengderan li ser 167 hezar û 140 sindoqan dengê xwe dan. Rêjeya beşdariyê %86.1 bû, û %51.37 dengê Erê û %48.63 dengê Na dan ereforma yasaya bingehîn.

Dijberên reforma yasaya bingehîn daketin ser kolanan û ragehandin ku kes nikare pêşiya nerazîbûna me bigre komîsyona Ewropayê jî ragehand ku li gora van saxtekariyên ku hatine kirin, em li benda nirxandina heyeta çavdêriya navneteweyî di vê derheqê de ne.

Herwisa YE jî daxwaz ji dewleta Tirkiyê kir ku piştî serkevtina lawaz ya dengê Erê bo dana deshilata zêdetir bi Erdoxan, serkomarê Tirkiyê dibe di hewla hevalbendiyeke berfirehtir digel dijberan jî be.

Ji aliyekî din ve, cihgirê serokwezîrê Tirkiyê jî derheq encama referandomê got ku encama wê bi dilê me nebû. Weysî kaynak herwisa ragehand ku rêjeya dengê erê kêm e, em di benda dengê zêdetir bûn.

Bona parastina ewlehiya vê referandomê hikûmeta Tirkiyê rêûşûnên tund ên ewlehiyê girtibûne pêş.

Alîgirên reforma yasaya bingehîn ser vê baweriyê bûn ku ew guherîn dikare Tirkiyê bihêz bike, lê yên ku dijî vê rapirsiyê ne, ser vê baweriyê bûn, ku ew guhertin deshilata serkomar gellek zêde dike, û bi vî awayî serkomar nahê kontrolkirin.

Bi baweriya wan, AKP ku partiya deshilatdar e, bi sedema vê ku gellek îmkanat di destan de hebûn, karî piropagendeyeke baş ji xwe re bike, û bi gefxwarinên berdewam, û tundûtîjî, û destbiserkirinên xweser, û guhnedana ragehandinên dewletê bi wan, hewl da ku serkevtinê bi dest bixe.

Dijberên AKP herwisa digotin ku Erdoxan ji çavkaniyên dewletî û merasimên wekî vekirina pirojeyên binesazî bo piropagendekirina ji bo xwe mifahê werdigre.

CHP jî ku yek ji partiyên dijî reforma yasaya bingehîn bû, ragehandibû ku heya niha 100 caran kêşe ji bo wan hatine pêkanîn, û heya gefên kuştinê jî li wan hatine xwarin.

Heya niha ji dema derbeya leşkerî ve, zêdetir ji 150 ragehandinên giştî hatine daxistin, û nêzî 150 rojnamevanî jî di girtîgehê de ne. Herwisa çend parlemantarên HDP`ê jî di girtîgehê de ne.




Navendên parêzerê mafê mirovan dibêjin ku dewletê bi astengkirina bazineya çalakiya neyarên xwe di ragehandinên giştî de, derbe li pêvajoya demokratîk xistiye.

Li gora raporeke DW, raportvanên bêsînor Tirkiye rexne kirine, seba pêşîgirtina ji azadiya raman û ragehandinan, û belav kirine ku bazineya çalakiya hêzên dijberî guherîna yasaya bingehîn, bi sedema pêkanîna rewşa tirs û wehşetê, bi awayekî berbiçav hatiye astengkirin.

Herwisa di nava rojnamevanên girtî de, rojnamevanek bi navê Denîz Yucel rojnamevanê Almanî yê Tirkziman heye. Ew bi tohmetên wekî endametiya di girûpeke terorîstî de hatiye girtin. Angila Mêrkil heya niha çend caran daxwaza berdana wî kiriye, lê Erdoxan ew wekî sîxor û terorîst bi nav kiriye, û helwetsa Mêrkil şibihandiye helwesta Naizyan.

Niha ku reforma yasaya bingehîn dengê Erê bidest xistiye, û AKP xwe bihêz dibîne, û serkomar bas ji egera rapirsiyeke din bo vegerandina cezaya îdamê bo Tirkiyê dike, wê demokrasiya Tirkiyê û pirsa Kurd di vî welatî de berbirûyê çi qederekê be, nediyar e.

Hêjayî basê ye ku Tirkiyê, yekem car di sala 1961`ê de ango 40 sal piştî avabûna xwe li pey derbeya 27`ê Gulanê ji bo destûra nû çû ser sindoqan. Ji sindoqan ji sedî 61.7 erê, ji sedî 38.3 nexêr derket, û Destûra 1961`ê qebûl bû.

# Nerîna Lîderan



**Osman Baydemîr:** “Bila azadî û demokrasî bi ser bikeve. Pêwîstiya welat bi xêrê û xweşiyê heye. Em hêvî dikin xêr, azadî û demokrasî bi ser bikeve.”



Osman Ocalan: “Divê kurd her car nebêjin Na”.



**Recep Erdogan**: “Li Başûrê Rojhilata Anatolyayê deng zêde bûne û ev encam ji bo serdemeke nû mizgîniyek e.”



**Kurtulmuş:** “Em niha bihêztir in”.

## Dîroka referandomên Tirkiyê



**Rûken Bagdu**

Tirkiye yekem car di sala 1961`ê de ango 40 sal piştî avabûna xwe li pey derbeya 27`ê Gulanê ji bo destûra nû çû ser sindoqan. Ji sindoqan ji sedî 61.7 erê, ji sedî 38.3 nexêr derket, û Destûra 1961`ê qebûl bû.

Piştre Tirkiye duyem car ji bo dengdana destûreke din dîsa çû ser sindoqan. 2 Sal piştî kûdetaya 1980’î di bin rewşa awarte de referandom pêk hat, û xelk bi encama %91.7 got erê, bo Destûra Bihgehîn a 1982`yan. Li gel vê dengdanê, serkomariya Ken’an Evren ê ku derbeya leşkerî pêk anîbû jî, pesend bû.

Dûre piştî 5 salan, ji bo mafekî bingehîn dîsan serî li raya xelkê dan. Ew jî mafê çalakiyên siyasî bû. Li gel derba 1980`î gelek kesayetiyên siyasî ji qada siyasetê hatibûn bi dûrxistin. Niha ji xelkê dipirsîn gelo bi raya we divê ev nav vegerin nav siyasetê an na? Ev bû pirs.

Cihêtiya vê redferandomê ji yên berê ew bû ku, vê carê hemû navgînên ragihandinê yên siyasî dê bihatana bikaranîn. Mîtîng, bernammeyên televizyonan, îlanên ser rojnameyan û ...hwd.

Encam bi vîrgulekê %50.16 bû erê. Ev yekemîn referandom bû di mêjûya siyasî de ku encamên erê û nexêr ew çend nêzîkî hev derbikevin. Herwiha yekemîn têkçûna Turgıt Ozal jî bû, ew kesê serfirazê hilbijartina 1983’yan a endamparlamanteriya giştî bû.
Salek bi şûn de, dîsan li deriyê xelkê (hilbijêran) xistin. Vê carê dê ji xelkê bipirsiyana gelo em hilbijartinên giştî, salekê bi pêş de vekişînin an na? Hilbijêr ji %65 gotin na.



Piştî 1988’an şûnde demeke dirêj xelk neçûn ser sindoqan, heta sala 2007`an. Referandoma 2007`an bingeh serhildaneke deshelatê bû li hember hişyariya elektronîk a ku ji aliyê serfermandeya leşkerî ve li ser sayta wan hatibû belavkirin. Ev hişyarî bi navê muxtiraya elektronîk tomar bû li ser rûpelên dîroka siyasî.

Hişyarnameya fermandeya leşkerî ji bo hilbijartina serkomariyê bû, ku dê demek bi şûn de, pêk bihata. Berendamê koçka serkomariyê Abdullah Gul ji AK Partiyê armanca vê hişyariyê bû. Serokwezîrê hingê Erdogan bi biryara referandomekê bersiva vê hişyariyê da. Werin em ji xelkê bipirsin gelo bila xelk serkomar hilbijêre.

Di 21`ê Cotmeha 2007`an de bi beşdariya ji %68.7 ya xelkê, ji sindoqan dengên ji %68.95 gotin erê bila xelk hilbijêre. Encama vê referandomê cara yekê di sala 2014’an de hate bikaranîn, û Serokê Giştî yê AK Partiyê û Serokwezîr Erdogan bi dengê ji%51.8 berê xwe da koçka serkomariyê. Erdogan bû bi yekemîn serkamar li Tirkiye ku ji aliyê xelkê ve hate hilbijartin.

AK Partiya ku di referandoma 2007`an de bi serket, di 2010`an de ji bo gorankariya destûrî li derê xelkê xist. Teksteke ji 26 bendan bû lê naverokeke zêde bi kitekitên teknîkî yên hiqûqî li xwe vehewandibû. Ev referandom di salvegera derba 12`ê Îlonê de dê pêk bihata, û AK Parti bi dengên ji %57.88 erê bi dest anî, û duyemîn serkeftina referandomê ji bo xwe dît.

Îca ev serkeftin çawa pêk hat gelo? AK Partî di bangeşeya vê referan-

**AK Partiya ku di referandoma 2007`an de bi serket, di 2010`an de ji bo gorankariya destûrî li derê xelkê xist. Teksteke ji 26 bendan bû, lê naverokeke zêde bi kitekitên teknîkî yên hiqûqî li xwe vehewandibû.**

domê de giranî da ser ew bendên destûrî ku rê nedidan kûdetavanên 12`ê Îlonê bên darizandin. Bi vî awayî ji xeynê dengdêrên partiya xwe herwiha bala kesên lîberal û çepgir jî bo aliyê xwe ve kêşa. Dirûşma “Têr nake, lê dîsa jî em dibêjin erê” wek silogana vê referandomê derbasî ser rûpelên dîrokê bûn.

Vêga îro AK Partî dîsa dixwaze raya erê wergire ji xelkê. Dîsa eynî weke sala 2010`an bi navê gorankariya destûrî pakêteke ji 18 bendan pêkhatî berpêşî xelkê dike. Lê cihêtiya naveroka vê pakêtê ya vê carê ew e ku dê bibe sedemê gorankariyên esasî yên gelekî girîng di şêweyê rêvebirina sîstema Tirkiye de.

Herwiha yek ji wan cihêtiyên esasî yên vê referandomê ji wan hemûyên ku di serdema deshilata AK Partiyê de pêk hatî, ew e ku ew jî di bin şertên rewşa neasayî de, va ye pêk tê.

**Nesrîn Ehmedî:**

**“Ez weke jine pêşmergeyek di nava Mekteba Demokratê de gellek tiştan fêr bûm, fêr bûm ku xweragir bim”.**

**H: Arif Vêlzî**

Mekteba Demokrat di sedsala derbazbûyî de hertim mektebek bihêz bûye ku, çendîn nifş têde hatine perwerdekirin û di pêşeroja gelê xwe de û xebata bona bidestxistina mafên gelê xwe de, xwedî rol û bandorekî bihêz bûye. Lewra perwerdeya di nava PDKÎ karek weha kiriye ku hemû zarok û bitaybetî dayîk û bab şanaziyê bi perwerdeya Hizba Demokrat, û piştre bi serkevtinên zarokên xwe bikin ku di vê mektebê de hatine perwerdekirin.

Nesrîn Ehmedî jî yek ji wan jin û dayîkên Kurdistanê ye ku piraniya temenê xwe, di nava Mekteba Demokratê de, bi xebata bona azadiyê derbaz kiriye, û niha jî şanaziyê bi sedema zext û givaşa rejîmê neçar ma ku zarokên xwe bi cih bihêle, û bê bal babê min li Îraqê. Piştî derbazbûna çend salan, dema ku temenê min tenê 5 sal bû, ez û xûşk û birayên xwe ji rêya qaçax ve hatin Îraqê û em careke din gehîştin dayîk û babên xwe. Heya temenê min bûye 18 salî min digel malbata xwe jiyana xwe di awareyiyê de derbaz kir, piştre min jiyana hevpar digel pêşmergeyekî Hizba Demokrat ava kir, û bi fermî ez hatim nava refên malbatên pêşmergeyên Hizbê de”.

Nesrîn Ehmedî derheq bi jiyana xwe ya hevpar dibêje: “Temenê min 18 salî bû ku min jiyana hevpar digel pêşmergeyekî Hizba Demokrat bi navê “Qadir Moradî” ava kir û piştî salekî em bûn xwediyê keçekî bi navê “Neşmîl”. Lê dema temenê Neşmîla



min zarokên xwe di nava PDKÎ de mezin kirine, gellek spasiya Hizba Demokrat dikim ku di perwerdekirin û xwendina zarokên me de rola sereke dilîze. Ez xwe bi qerdarê Hizba Demokrat dizanin, serbarê vê ku keça min ya mezin keça şehîdekî Hizba Demokrat e, lê ez her spasiya Hizba xwe dikim”.

**Mixabin piştî 18 heyvan îşkenceyên curbicur “Qadir Moradî” digel 4 pêşmergeyên din ên PDKÎ li girtîgeha “Dîzilabad” a Kirmaşanê hate îdamkirin**





Hizba Demokrat dike û dibêje ku, Demokrat mektebeke bihêz e bona perwerdekirina zarokan.

Nesrîn Ehmedî keça “Ebdulla”, sala 1971’an (1350) li gundê “Merexêl” a ser bi bajarê “Cuwanro”yê, di malbateke welatparêz û xebatkar de hatiye dinê.

Nesrîn Ehmedî nasyarî û tevlîbûna xwe tevî PDKÎ weha ji Agiriyê re bas dike: “Di despêkê de babê min pêşmergeyê PDKÎ bû, her eva jî sedem bû ku ez di zarokatiya xwe de PDKÎ nas bikim. Babê min piştî şoreşa gelên Îranê û fermana “Cîhad” a Xumeynî, bi sedema encamdana karên siyasî awareyî welatê Îraqê bû. Piştî heyamekî dayîka min jî bi keça me tenê 4 heyv bûn, babê Neşmîl bona birêvebirina erkên hizbê vegeriya Kurdistana Rojhilat û ji aliyê rejîma Îslamî ya Îranê ve hate girtin. Mixabin piştî 18 heyvan îşkenceyên curbicur “Qadir Moradî” digel 4 pêşmergeyên din ên PDKÎ li girtîgeha “Dîzilabad” a Kirmaşanê hate îdamkirin. Piştî şehîdkirina hevjînê min ez vegeriyam mala babê xwe û heyamê 5 salan min Neşmîla keça xwe xwedî û mezin kir. Paşan min careke din jiyana hevpar digel pêşmergeyekî din yê PDKÎ bi navê “Ebdullah Rehîmî” ava kir û berhema jiyana me niha 2 keç û kurek in”.

Nesrîn Ehmedî derheq bi çavnihêriya xwe ji PDKÎ weha dibêje: “Ez şanaziyê bi derbazbûyî û pêşeroja xwe dikim, ez pir kêfxweş im ku

Nesrîn Ehmedî roja herî xweş a jiyana xwe weha ji Agiriyê re bas dike: “Roja herî xweş a jiyana min dîtina rêberê gelê Kurd Dr. Qasimlo bû. Dema kîmiyabarana bajarê Helebçê, em asê mabûn û di rewşek pir xirab de bûn, dema em derbaz bûn Dr. Qasimlo hate pêşwaziya me, min wî çaxî Dr. Qasimlo dît, ez pir kêfxweş bûm ku min rêberê xwe ji nêzîk ve dît”.

Nesrîn Ehmedî li hember rojên xweş de weha bas ji rojên nexweş ên jiyana xwe dike: “Mixabin rojên tal û nexweş di jiyana me de bi qasekî zêde ne ku mirov nizane bas ji kîjan rojî bike, digel vê yekê ku min û hevjînê xwe gelek zehmetî di nava şoreşê de dîtine, lê hêj li ser vê baweriyê me ku şoreş bê fîdakarî nameşe, jiber ku ez weke jine pêşmergeyek di nava Mekteba Demokratê de gellek tiştan fêr bûm, fêr bûm ku xweragir bim, fêr bûm ku bona gehîştina bi armancên xwe, li hember dûriya ji welat û xizm û kesên xwe, berxwe bidim”.

Nesrîn Ehmedî bi vê gotinê dawiyê bi hevpeyvîna xwe tîne: “Ez daxwazê ji jin û keç û dayîkên Kurdistanê dikim ku, bi her awayekî dikarin alîkarê birêveçûna şoreşê bona gehîştina bi armancên şehîdan bin, alîkariya pêşmerge bikin, bixwe bibin pêşmerege û weke endam di hizba xwe de, wate Hizba Demokrata Kurdistana Îranê de, xizmeta gel û nîştimana xwe bikin.

## “Binyada Mustez`efan” dest bi ser koşka mozeyên Se`id Abad û Niyaweran de digre

**“Binyada Mustez`efan” û Saziya Mîrasên ferhengî li ser xwedîtiya koşka mozeyên Se`id Abad û Niyaweran kêşe hene.**

Saziya Mîras Ferhengî ser vê baweriyê ye ku koşka mozeyên Se`id Abad û Niyaweran di serdema Pehlewî de, bi perê beytulmalê hatiye çêkirin, lewra ew yek dibe ser bi Saziya Mîrasên ferhengî be.

Talibiyan cihgirê berpirsê Saziya Mîrasên Ferhengî ragehandiye, ku di madeya 1 ya pirojeyasaya pesendkirî ya Şêvra Inqilab a sala 1359`an de hatiye ku, tewahiya koşkan, bi taybetî koşka Se`id Abad û Niyaweran bo avakirina mozeyan dikevin destê Wezareta Çand û Perwerdehiya Bilind de, û piştre jî bi saziya Mîrasên Ferhengî têne spartin.

Lê di vê derheqê de, “Binyada Mustez`efan” (Binyata belengaz û hewcedaran) li gora madeya 49 ya yasaya bingehîn dibêje ku ew avahî dibe di destên “Binyada Mustez`efan” (Binyata belengaz û hewcedaran) de bin.

“Binyada Mustez`efan” (Binyata belengaz û hewcedaran) ku tenê, navê wê pêwendî bi mustezefan (hewcedaran) ve heye, di destpêka şoreşa gelên Îranê de, bi biryara Xomêynî û bo destbiserdegirtina wan mal û avahiyan hate çêkirin ku ser bi malbata Pehlewî bûn, û niha ew binyada Musetzefan, xwediyê 150 şîrket û saziyan di warê enirjî, avahiyan, pîşesaziyên xwarin, û çavkaniyên bin`erd û navendeke çandî a mozeyên binyatê, û gellek cihên din in.

“Binyada Mustez`efan” (Binyata belengaz û hewcedaran) herwisa enbareke mezin heye, ku tejî ye ji hezaran qetên şûnwarên dîrokî û çandî ên Îranê. Gellek ji wan şûnwarên



dîrokî, niha di vê enbarê de nemane, û winda bûne, û “Binyada Mustez`efan” (Binyata belengaz û hewcedaran) jî, ji bilî Elî Xamineyî di hemberî tu kes û aliyekî de berpirsyar nine.

Herçend eşkere nine ku ew şer û kêşeya di navbera binyada Musetzefan û Saziya Mîratên çandî de, bigihîje kuderê, lê di salên borî de, vê saziyê, di hemberî vê binyadê û di hemberî saziyên wekî Spah û Ewqafê de, paşekêşe kiriye.

## Me`sûme Ibtikar: Rewşa gola Urmiyê baştir dibe

**Me`sûme Ibtikar seroka Saziya Parastina Jîngehê ragehandiye ku kar û kiryarên dewleta niha bûye sedema ber bi başbûnê ve çûna ava gola Urmiyê.**



Li gora raporan, Me`sûme Ibtikar seroka Saziya Parastina Jîngehê berdana ava bendavan, û ya rûbaran, û girîngîdana bi alîkariyên navneteweyî wekî kiryarên bibandor ên vejiyandina gola Urmiyê bi nav kir, û ragehand ku di dewleta Ehmedînijad de, girîngî bi vejiyandina gola Urmiyê nehatibû dayîn.

Navbirî bas ji vê jî kir ku alîkariya hevbeş ya ofîsa Alîkariyan a NY, dewleta Japonê, û Saziya Jîngeh a Îranê roleke bibandor hebûn di destpêvegirtina avê, û jêhelbirina asta çandiniyê di 90 gundên derdora gola Urmiyê de.

Ji sala 1392`an ve, dewleta 11`an, bi alîkariya pirograma vegeşandinê ya NY û dewleta Japonê hewl da, ku hinek beşên vê golê, ku %93 a wê hişik bûye, vejîne.

Pêka raporan, ava gola Urmiyê, ji 500 milyon metrên muke`eb ve gihaye du milyard metrên muke`eb, û pêvajoya hişikbûna wê bidawî hatiye.
Di meha Rêbendana sala borî de, birêveberê ofîsa parêzgehê, ya navenda vejiyandina gola Urmiyê, ragehandibû ku tevî kêmiya barînê, di sala 1395`an de, teraza ava gola Urmiyê li gora sala berê, 12 cm zêde bûye.

Lê wê demê ofîsa bernamerêjiyê ya vê navendê dixwast ji meha Rezbera 1395`an heya Xermanana sala 1396`an, 40 cm ava gola Urmiyê zêde bike, lê tevî kêşeyan berbirû bû.

## Dezgeha Dadweriya Îranê, bêhurmetî bi hemwelatiyên Kurd dike



**Dezgeha Dadweriya Îranê, bêhurmetî bi hemwelatiyên Kurd dikeAjansa Kurdpa: Sê hevwelatiyên li bajarê Dêhloran a ser bi parêzgeha Îlamê, ji aliyê Dezgeha Dadweriya vî bajarî ve bi hêceta vê ku, ew “erazil û obaş” bûne, mesîne kirne stûyê wan de.**

Roja Çarşemiyê 23`ê Xakelêweyê, sê hevwelatiyên Kurd li bajarê Dêhloranê, mesîne xistin stûyê wan de, û ew di nava xelkê de gerandin.

Nûçegihaniya Mêhr a Îlamê, ji zarê hêzên Întizamî ve belav kir, ku ew biryar, biryara serdozgeriya bajarê Dêhloranê bûye. Ew sê hemwelatî bi tohmeta pêkanîna tevdanîkariyan, rehîngirtinê, û qemekêşanê, ew hukm, bi ser wan de hatiye sepandin.

Herwisa malpera Sêrat jî, ji zarê Necefî serdozgerê giştî û Înqilab a bajarê Dêhloranê ve, armanca ji vê yekê, hişdarîdana bi wan kesan bi nav kir, ku mijûlî şikandina normên civakê, û destdirêjiya bi zorî û bêhurmetiya bi namûsa xelkê ne. Pêştir jî di bajarê Merîwanê de, dadageha vî bajarî bi zorî cilûbergên jinane kiribûn ber hevwelatiyekî xelkê vî bajarî, û ew di nava xelkê de gerandibûn.

## Aktorê kurd di fîlmeke cîhanî de dibe pêşmerge



**Derhêner û aktorê kurd "Danî Darên" ligel aktorê navdar ê hîndî "Shahrukh Khan", di fîlmekê de rol dilîze.**

"Danî Darên", ku nîştecihê Brîtanyayê ye, di nûtirîn fîlma hevbeşî ya "Bollywood" û Brîtanî de, beşdar dibe.

Ev film karekî hevbeş ê "Bollywood2 û sînemaya Brîtanyayê ye. Stêrka navdar a hindî û cîhanî "Shahrukh Khan" di vê fîlmê de cîh digre. Ew jî weke aktor cihê xwe digre."
"Danî Darên" beriya niha ligel çendîn aktorên navdar ên cîhanê jî di filman de lîstiye.
Darên dibêje; "Beriya niha jî min ligel çendîn stêrkên cîhanî û herwiha yên "Bollywood"ê di fîlman de rol girt. Di fîlma dawî de behsa 4 leşkeren bihêz ên cîhanê tê kirin, ez jî di wê fîlmê de rola pêşmergeyekî dilîzim. Pêşmerge yek ji 4 leşkerê aza û bihêz ê cîhanê ye."rudaw

## Gotinên Navdaran



A: FIRAT CEWERÎ

Her malbat dîrokek e, ji yê ku zane bixwîne re, destanek e.
**A. de Lamartine**

Di her malbatê de melek jî hene, şeytan jî hene.
**Joseph Roux**

Di xortaniyê û spehîbûnê de li êqil megere.
**Homeros**

Bêaqil ji biaqilan hindik tiştan hîn dibin, lê biaqil ji bêaqilan pir tiştan hîn dibin.
**Cato**

Aqilek baş e, du aqil baştir in.
**A. Çexov**

Kêmaqilî bi du celeban dibe: Yek jê ji dinîtî, ya din jî ji nezanî ye.
**Eflatun**

Mirov mezinahiya peyakî di nefs-biçûkahiya wî de dibîne.
**John Ruskin**

Roj bi birçiyan dirêj tên.
**Aleksis Kivi**

Neheqiya ku li yekî bi tenê dibe, ji civatê gişî re tehdîtek e.
**Montesquieu**

Gul çi ye? Ma navê wê tiştekî din ba jî qey wê evqasî ne bêhnxweş bûya?
**Shakespeare**

Navê ku tu ji lawê xwe re bihêlî, bila bavê te fedîkar dernexe.
**Baraccio**

## Çend kilasîkên tirkî dê bi kurdî jî bên weşandin



**Pirtûkên kilasîk ên tirkî yên bi 7 zimanî hatine weşandin, di çarçoveya "Projeya Wergera Kilasîkên Tirkî" de, bi kurdî jî wê bêne weşandin.**

Di pirojeya bi alîkariya Fona Nasandinê ya Serokwezîriyê va ku bi pêşîkêşiya Weşanxaneya Mavî Agacê ve wergera hin berheman hat kirin û bi zimanê ingilîzî, fransî, îspanî, rûsî, almanî, boşnakî û korekî hatin weşandin. Heta demekê wê berhemên tirkî bi wergera zimanê kurdî, flemenkî, erebî, japonî û çînî jî bên weşandin.

Di projeya tê xwestin çanda Tirkiyê bê nasandin û ji bo wêjeya tirkî balê bikşîne ji "Sefahat", "Kutadgu Bîlîg", "Seyehetname", "Mesnewî", "Dîwana Yûnis Emre" û "Nutuk"ê hin beşên berhevkirî û çîrokên bijarte yên ji "Omer Seyfeddîn", "Xoce Nesreddîn" û "Hacivat û Karagoz" hatin wergerandin.

Rêvebirê Weşana Giştî ya Koma Weşana Profîl û Mavî Agacê Munîr Ustun der heqê projeyê de diyar kir ku wergera kilasîkên tirkî ewilî bi zimanê ingilîzî û almanî hat kirin û wiha pê da çû:

"Vê projeyê cara ewil di sala 2008an de dest pê kir û di civaka navneteweyî de me dît ku kilasîkên tirkî pir nayên zanîn û li ser vê jî me dest bi projeyê kir. Ev proje di wan rojan de di hişê me de bi cih bûbû. Ji sala 2008an heta niha bi 7 zimanên ji ingilîzî, fransî, îspanî, rûsî, almanî, boşnakî û korekî pêk tê 64 berhemên me hatin weşandin."

Ustun destnîşan kir ku ji bo berdewamiya projeyê jî hin xebatan dikin û wiha pê da çû: "Ji bo kalsîkên me yên tirkî bi wergera kurdî, flemenkî, erebî, japonî û çînî jî bên weşandin xebatên me hene. Înşeallah di rojên pêş me de wê encam derbikevin holê."rudaw

## Stranbêja sûrî amadekariya straneke kurdî dike

**Stranbêja xelka Sûriyê "Nadiye Menfuh" got, ew demeke dirêj e ji bo straneke kurdî amadekariyê dike.**

Nadiye Menfuh ji Rûdawê re ragihand ku ew dixwaze straneke kurdî bibêje, û dê di demeke nêzîk de straneke kurdî bilav bike.

Stranbêja ji Sûriyê diyar kir ku wê beriya niha serdana Herêma Kurdistanê kiriye û wiha domand: "Ez paytaxta Herêma Kurdistanê bajarê Hewlêrê wekî mala xwe ya duyem dibînim. Peywendiyên min digel hunermendên Hewlêrê gelek baş e. Muzîka kurdî û sûrî gelek nêzîk hev in."rudaw



## Çêbûn û pêşketina zimên

Beşa 1

Ku ne zimanê mirovan bûya, dê gelek cudatî di navber mirovan û lawiran de nebûya, ne tenê ji alî mejî ve, lê belê ji aliyê fîzîkî ve jî. Ji ber ku bikaranîna mirovî ji zimanî re hiştitbû dev û rûyê wî bên guhartin, wek valatiya di ezmanê devê mirovan de, çenga mirovan kurt e, ne wekî çenga lawiran e.

Ji ber ku jiyana mirovên destpêkê pêşket û di komên biçûk de jiyan kirin, lewra neçar man ku gelek dengan derxin. Pêwîste ku mirov bizanibe ku ziman ne tenê li ser bingeha denganê derketiye, lê belê li rex deng, gelek hêman û nîşanên cuda hebûn. Girîngiya hereketan gelek hebû. Em vê yekê jî heya niha di hemû civak û zimanan de dibînin, ji ber ku arîkariya me ji bo danasîna tiştekî, peyvekî, navekî, pîvanekî û gelek wate û awayên ku em dixwazin bidin nasîn. Bi taybet jî hereketên destan, çavan û serî, ev hereketana li gel hemû gelan heye, û hemû kes dikarê bikar bîne, mînak: demê ku tu tiştekî naxwazî, tu serê xwe paşva dibî, yan jî tu destê xwe didî pêş xwe.

Ji bu ku em çavkaniya derketina ziman nas bikin, pêwîst e em di destpêkê de, zimanên Meymonan û zarokên biçûk lêkolîn bikin. Her wiha pêwîst e em zimanên kevin û zimanên vê demê bi hev re kêşe bikin. Cudatî û hevbeşiya di navber wan de nas bikin. Em dizanin ku em û Meymonan (bi taybet jî Şampazî) re bi çend gotinan par dikin, wek gotina ( KÎX) ku ji bu tirsandina zarokan tê bi karanîn. Ev peyva di hemû zimanên cîhanê de heye. Her wiha peyva (Ba) û (Ma) ku zarokên yek Salî pê bangî bav û dayka xwe dike.

Gelek peyvên hevbeş di navber mirovên cîhanê de hene, tu dibînî ku gelek peyvên Îngilîzî di zimanê Misrî yê kevin de heye. Herwisa gelek peyv ku di gelek zimanan de yek wateyî didin hene, wek ( na-no-nîst, nû-new-yeni, qut-cut- qet......û hwd). Ev tê wateya ku hemû ziman ji yek yan jî çend çavkaniyan çêbûne.
Tê gotin ku rolek mezin ya agir di pêşketina ziman de heye, bi taybet jî bandora vê yekê li ser jinan kiribû. Çawa rola agir? Û çima bi taybet jî jin? Wek tê zanîn ku bikaranîna mirovan ji agir re hişt ku mirov bi şev li dora agir ronên. Lê ji ber tarîtiyê ku hêl nade ku hereketan û hêmanan bi karbînin, mirov neçar dibûn ku peyv û dengan derxîne. Ev yeka bi taybet jî jinan dikir, ji ber ku jinan karên çandiniyê dikirin û bi şev li hev diciviyan, û ji hev re dipeyêvîn.

Gelek peyêv bingehê xwe ji dengê ku derdixînê nav lê hatine kirin, wek: Ba, Qijok xirxirk, çirçirk, firok, Baq, xûçxûşa avê, himhima Aş........hwd.

Zorahiya herî mezin a mirovan di afirandina ziman de, kêşeya navên hêjmara (reqem) ne. Di zimanê gelê daristanên Awûstralyayê de ji bilî hêjmara Yek (1) û Dû (2) tu hejmarên dîtir nîne. Mînak : Ji bu ku hêjmara Sê (3) bînin ziman, wiha dibêjin “dû(2) û yek(1)”, û ku bixwazin bêjin deh (10), wê bêjin “ 2 û 2 û 2 û 2 û 2”. Ev yeka jî dide xûyakirin ku çiqasî ziman pêşketiye û roj bi roj berfereh dibe. Li rex wê jî gelek ziman ji holê tên rakirin û wek zimanê gelên Amazon û gelek gelên ku bi komkûjiyan ji holê hatin rakirin, bi wan re jî ziman û hûnera wan hate kuştin. Her wiha gelek milet bi zimanê xwe yê zikmakî naaxivin, di vî milî de zimanê Îngilîzî di pileya yekê daye, ku bandora xwe li hemu cîhanê dike. Niha nêzikî 4000 zimanî zindî di cîhanê de hene.
Em dixwazin di despêkê de beş û şaxên zimanên Cîhanê bidin xuyakirin. Li gorî zimanzanên cîhanê ku zimanên zindî dabeş kirine, û bingehê wan vekolandine, û li ser vî bingehî ku rêziman, koka ziman, devoka ziman û şêwayê pêşketina zimanan, hemû ziman hatine dabeşkirin.

Destpêka peydabûna zimên

Heta niha ji bo şarezayan nediyar e ku cara yekem mirov li ku dera cîhanê peyda bûne yan ji wir çûne ku, û li ku niştecih bûne? Ya ronî û eşkere ew e ku mirov di cihekî jiyane û bi zimanekî axivîne. Bi derbasbûna demê hêdî hêdî zêde bûne, bi neçarî ber bi vî alî û wî aliyê cîhanê ve çûne û berbelav bûne. Bi vî awayî wekî civak, kom û deste hatine dabeşkirin. Her komekê jî ji xwe re şêwe û zimanekî taybet peyda kiriye. Hemû zimanzan li ser vê li hev dikin ku ziman di destpêkê de sade bûye û dibêjin ku ziman ji dengê ba, baran, giyandar (jîndar) û kar û tevgera mirovan derketiye holê; paşê ku mirov bi pêş ketine û şaristanî bi dest xwe ve anîne, zimanê wan jî bi pêş ketiye.

Ew şareza li gorî bîr û baweriyên xwe dengên ku di zimanê kurdî de hene bi vî awayî rave dikin: kalîna mîhê, lorîna gur, heftîn (hewtîna)a se, hêrîna bizinê, nirîna şêr, şêyîn-hîrîna hesp, waqîna rovî, qareqara mirîşkê, qebîna kewê, xuşîna avê, vizîna bayê, gurmîna topê, teqîna tifingê, çîkîna cûcikê, çîrîna derî, kilîna meşkê, xirçîna zebeş, zimîna pê, hirîna ewran, mewîna pîsîkê û hwd. ku di kurdî de mînakên bi vî awayî pir in. Tê zanîn ku mirovan di destpêkê de nekariye binivîse û alfabeyek jî ji bo nivîsandinê tune bûye. Dîroka alfabe û nivîsînê nayê zanîn, lê wisa tê xuyakirin ku yekem xet nivîs pir sade û zakokane bûye û ji wê xetê re “Xeta Wêneyî” hatiye gotin. mirovan bi xêzkirina wênayan helwesta xwe ji hev re diyar dikir. Hêdî, hêdî di nava neteweyan de xet guheriye û jê re alfabe hatiye diyarkirin û navê “Alfabeya bizmarî” lê hatiye kirin. Bûyerên şerên xwe li ser kevir û zinaran bi vê xetê kolane. Xetên bizmarî yên îranî ji hemû xetên bizmarî yên babîl û Aşûrî sadetir û xweştir bûne û her wiha cudahiyeke mezin di nav vê xetê û xetên navborî de hebûne. Çima ku gelê îranê alfabeya bizmarî ya babîlan guherî û elfabeyeke bi rêk û pêk damezirand. Ew kevirên nivîsî ku li Textê Cemşîd, Bêstûn, Hemedan û hin cihên din ên Îran û Kurdistanê hatine dîtin, nimûneyên ji wan xetên bizmarî ne. **Dom heye**

## Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

**Av**
**- Hada û bada, çu nav werzê qurrada, têr xar û koriya xwe bada.**
**- Hurr hurr dikit, bûrr bûrr dikit, qesta dergihê Stembol dikit.**
**- Tiştekî min heye diçe, li pişt xwe nanêre.**
**- Hindî bişûy, pîs dibit.**
**- Dojmin e lo agirî, bi ton dara hildigirî, bizmarekê ranagirî.**

**Rûbar/Çem**
**- Bê ser û bê ling e, di herike li bajar û gund e.**

**- Çêla zayi, di geliya badayi.**
**- Hindî bideyê dê xot.**
**- Hindî bêjî, dê dirêjbit.**
**- Xwar e ne dar e, dikale ne kar e, dixushe ne mar e**

**- 366 quling hêlînek e û 2 têjik.**
**(* Hijmara rojêt salê, esman, heyv û roj)**
**- Roja navî, şeva navî, 7 bira li pey hev direvî.**
**(* Heft rojên heftiyê)**
**- Şêstuduker, di serê milekê kirin der, şeş goh û sê ser.**
**(* Şêsto –mirov e- + 2 ker, di bine xwedî sê ser û 6 guha.)**
**- Çar destin, çar pê ne, du qun in, êk li ser pêye, êk li ser piştêye. (* Siyar û dewar)**
**- Çiwar çelê, guh belê, 12 gulê pîr xertelê.**

**(* 4 pê, 2 guh û kurî, 2 çav û 2 şaxêt biznê)**
**- 4 di zeq in, 4 di req in, 8 di çeq in, 90 pêve, 18 tê ve, ji vêrê û wêve. (* 4 çav, 4 şax, 8 pê , cutek ga)**

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



# Agirî

◆ Rojnameya "Agirî" di van malperên jêrên de bixwînin:
◆ www.Kurdistanmedia.com
◆ www.Agirimedia.org
◆ rojnamaagiri@gmail.com
◆ www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (300)

## Di roja cîhaniya kedkaran de li Îranê, wê Amerîka bê mehkûmkirin

**Nûnerê Urmiyê di meclisê de, daxwaz kir ku di roja 11`ê Banemerê de, rê bi kedkaran bête dan ku meşeke nerazîbûnê bi rê ve bibin.**



Nadir Qazîpûr nûnerê Urmiyê di meclisê de, daxwaz kir, ku kedkar bila di vê rojê de li dijî Amerîkayê û siyasetên wê diruşman bidin.

Her di vê derheqê de, Elî Larîcanî serokê meclisa rejîmê jî, tevî pêdagirîkirina li ser vê pêşniyarê, ragehand ku pêwîste Wezareta Navxwe bi nerîneke erênî, vê pêşniyarê bişopîne.

Nûnerê Urmiyê di meclisê de, tevî îşarekirina bi madeya 27`ê ya yasaya bingehîn got ku xwenîşandan û kombûn, bi vê şertê ku li dijî bingehên yasayî ên civak û Îslamê nebin rewa û meşrû`i in, û daxwaz kir ku dibe Wezareta Navxwe îznê bide ku li sertaserî Îranê de meşên nerazîbûnê bi rê ve herin, û di vê meşa nerazîbûnê de, diruşma "merge ber Amerîka" bête dan, û bi vî awayî xelk bêzariya xwe ji siyasetên Amerîkayê di Sûriyê û Yemenê de nîşan bidin.

Wezareta Navxwe ya rejîma Îranê, çalakiyên saziyên serbixwe ên kedkarî bi fermî nas nake, û îznê nade wan, ku di roja cîhaniya kedkar de, meşên nerazîbûnê bi rê ve bibin û daxwazên xwe bînin ziman. Gellek caran jî di vê rojê de, kedkar tenê li ser daxwaza mafên xwe berbirûyê girtin, îşkence û hukmên herî tund ên wekî şellaqlêdanê dibin.

Daxwaza nûnerê Urmiyê jî, bo vê ku kedkar di vê rojê de bedela baskirina ji êş û azarên xwe, diruşmên "merg ber Amerîka"yê bidin, cihê heyrîmanê û ecêb nine, jiber ku xelk kesayetiya wî bi başî nas dikin, û wî bixwe di gotûbêjeke vîdyoyî de gotibû, ku di şer de 700-800 Îraqî teslîm bûn, û xwe radestî me kirin, lê me nekarî em wan hemiyan veguhêzin, lewar me xwe ji destê wan xilas kir! Helbest gelek kes nikarin serjêkirina pez jî bibînin, lê me bo xatirê îmam û şehîdên xwe, ew yek kir.

Wî herwisa di hevpeyvîneke din de, gotibû ku meclis cihê jinan nine, nabe ew herin meclisê. Ew gotinên wî rastî berteken tund di torên civakî de hatibûn.

Hêjayî basê ye ku navbirî di destpêka dehka 60`î de, di ofîsa hilbijartinan ya Xamineyî de kar kiriye, hem jî fermandarê Pîranşar û Serdeştê bûye. Di sala 1382`a de jî, bûye fermandê gordana topxanê ya tîpa yek

## Rola Spaha Pasdaran di qaçaxa tiryakê de eşkere bû

**Piştî destbiserkirina deh kesan bi tohmeta qaçaxa tiryakê ji Îranê ve bo Îtalyayê, rola spaha Pasdaran a terorîst di qaçaxa madeyên hişber de bo Ewropayê eşkere bû.**



Li gora rapora Keyhanê Lendenê, ew taqma ku ji neh hemwelatiyên Şî`e ên Îraqî pêk hatiye, ji aliyê kesekî 39 salî ê Îranî ve bi navê Se`îd tê birêvebirin.

Lêkolîna polîsê Îtalyayê eşkere dike, ku ew taqma digel fermandeyekî hêza Quds a ser bi Spaha Pasdaran a terorîst di pêwendiyê de bûye.

Bi vê pêkê, tiryak di nava kamyonan de, têne bicihkirin, û siwarî gemiyan têne kirin, û ji Tirkiyê ve bo bendera Tirîst a Îtalyayê têne şandin, û piştre ji riya qaçaxçiyan ve bi kiryarên Ewropayî dihate firotin.

Lêkolînên polîsê Îtalyayê hêşta dom heye, lê tê gotin ku di pêvajoya lêpirsînan de, navê Xulamriza Baxbanî fermandê pêşîn ê Spaha Quds li parêzgeha Belûçistanê hatiye ber bas. Tê gotin ew fermandarê pêşîn ê Spaha Pasdaran pêwendiyeke baş digel Qasim Silêmanî heye.

Baxibanî pêştir jî bi sedema rola wî di çalakiyên komek qaçaxçiyên Lubnanî ên madeyên hişber de, ku ser bi rêkxirawa terorîstî ya Hizbulahê bûn, û di hinek welatên Amerîkaya Latîn wekî Birizîl, Arjantîn, û Paragowa de çalakî dikirin, navê wî hatibû.

Di lêkolînên polîsê welatê Çêk de komeke zanyarî li ser çalakiya hinek taqmên din bi dest hatiye, ku ser bi Spaha Quds bûn, û digel Baxibanî di pêwendiyê de bûn, ku ew taqm di heft welatên Ewropî de çalakiyan dikin.

## Siyasetên têkderane, rejîma Îranê roj bi roj zêdetir îzole dikin

**Siyasetên destêwerdanê, û têkdana ewlehiya welatên Rojhilata Navîn ji aliyê rejîma Îslamî ya Îranê ve, bûye sedem ku welatên xwedîhêz ên herêmî û cîhanî di vê derheqê de hişdariyê bidin.**

Di vê derheqê de serkomarê Turkiyê Erdoxan ragehand ku, rejîma Îranê siyaseta zêdexwaziyê li ser bingeha Farsîzmê di herêmê de peyrew dike, û eva jî dibe sedema nerihetiya me, û aloziyan çê dike.



Erdoxan di hevpeyvîneke de digel kanala "Al-jazeera" de ragehand ku, zêdexwaziyên rejîma Îranê ne ku, li ser bingeha Farsîzm û geşkirina agirê şerê tayîfî hatine darêtin, û bûne sedem ku welatên Sûriye û Îraqê ber bi hiloşandinê ve herin.

Eva di demekî de ye ku berê jî, çendîn caran rayedarên dewleta Turkiyê siyasetên rejîma Îranê di Herêmê û bi taybetî di Îraq û Sûriyê de renxe kirine.

Hevdem Çarşemî 19'ê Nîsna 2017'an "Rex Tillerson" ê Wezîrê Berevaniya Amerîkayê di gotarekê de li ser siyasetên têkderane yên rejîma Îslamî ya Îranê sekinî û ragehand ku, rejîma Îranê bi gotin û bi kiryar hewla afirandina şer û aloziyan di herêmê de dide.